



**Deftera Siyasî ya PDKÎ spasiya xelkê Kurdistanê kir**




»»»» R:3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (282) 21-07-2016 Buha (500) Tûmen*

## Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ digel welatê Fransayê hevderdî kir



**Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ di peyamekê de, bo serkomarê Fransayê êrîşa terorîstî ya li bajarê Nîs şermezar kir.**

Deqa peyamê:

Peyama hevderdiyê ya rêzdar Mistefa Hicrî bo rêzdar Franswa Oland

Derheq mehkûmkirina kiryara terorîstî ya şeva 14.07.2016'an li bajarê Nîs

Rêzdar cenabê serkomar!

Li ser navê PDKÎ, em vê kiryara terorîstî û cinayetkarane şermezar dikin, ku şeva 14.07.2016'an û di dema birêvebirina rêûresma cejna neteweyî ya Fransayê li bajarê Nîs de rû da, û bû sedema vê ku aliyê kêm 84 kes jiyana xwe ji dest bidin.

Ew kiryara terorîstî, bêguman kiryarek li dijî mirovahiyê û li dijî aştî û azadiyê ye. Di vê dema dijwar û xembar de, em ku bixwe qurbaniyê terorîzma rejîma Îslamiya Îranê bûne, û niha jî her wisa ye, em xwe mil bi milê netewe û dewleta Fransayê li dijî terorê dizanin, û di vir de, ji kûrahiya dilê xwe ve, sersaxiyê dibêjne qurbaniyên vê cinayeta bisam û dijî mirovî, û hevsoziya xwe ji bo netewe û dewleta Fransayê eşkere dikin.

Tevî rêz û hurmetê

**Sekreterê giştî ê PDKÎ**
**Mistefa Hicrî**
**15.07.2016**

## Êdî çiya û bajar hevdeng in







**Xelkê mafxwaz û xweragir yê Kurdistanê di roja 22'ê Pûşperê 27'mîn salvegera terora Dr. Qasimlo û hevalên wî bi destê dîplomat terorîstên rejîma Îslamî ya Îranê li bajarê Viyenê de, bi girêd**ana dukan û bazarên xwe, bersiva bangewaza PDKÎ bi "Belê" dan.

Li bajarên Sine, Kamyaran, Bokan, Mihabad, Seqiz, Pawe, Kirmaşan,Merîwan, Bane, Dîwandere, Serdeşt, Serwabad, Neqede, Şino, Pîranşar û Urmiyê, di bersiva bangewaza PDKÎ de, xelkê Kurdistanê dukan û bazarên xwe daxistin, û bi vî awayî peymana wefadariya xwe tevî Hizba Demokrat û rêbaza şehîdan nû kirin.

Li Seqiz, Şino, Pîranşar, Kirmaşan û derdora Dizêya ser bi devera Mirgewera Urmiyê, hêzên ewlehî ên ser bi rejîmê, bi gefên curbicur û bi şikandina deriyê dukan û bazaran hewla vê yekê dan, ku xelkê neçar bikin, ku dukan û bazarên xwe vekin.

Li hinek bajarên din rejîmê ji rêya kirêgirtiyên xwe ve, gef li malbatên kesên ku xwedî keysê siyasî ne xwarin, ku tevlî gireva giştî ya 22'ê Pûşperê nebin.

Li çend bajar û gundên Kurdistanê ên weke Şino û Seqiz û Dizêya Mirgewer jî, hêzên rejîmê bi şikandina şûşe û belavkirina tirs û dilkutokê, û herweha girtina wêneyê dukan û bazarên girtî, hewla rêgirîkirin ji tevlîbûna xelkê wan bajaran bi gireva giştî ya 22'ê Pûşperê re dan.



**Jiyannameya şehîdan Kawe Cewanmerd û Serkewt Semedî**



**Kawe Cewanmerd, li sala 1358 (1979)'an, di bajarê Sine de, ji dayîk bû.........**

**Şehîd Serkewt Semedî kurê Yunis sala 1359 (1980)'î, di gundê "Serumalî" ya Sewlawa de ji dayîk bû..........**

»»»» R:4



**"Rasan"ê bêdengiya Rojhilat şikand**

»»»» R:6

## Sergotar

# Rejîm tevizî

Kerîm Perwîzî

Di van çend rojên borî de, Komara Îslamiya terorîst, hewleke zaf da, ku di nav bîrkirin û raya giştî de, cardin vê yekê cî bike, ku kêşeyek bi navê kêşeya kurd di Îranê de tune ye, û eva ku PDKÎ bas dike, rûkêş û bêbingeh e, û ew yek bi çend gef û gurr û çavsorkirin, û bi çend topan, dawî pê tê.

Di vê derheqê de, vê rejîmê gellek boxtan û vir û derev kirin, lê di du biyavan de, vê rejîmê ji hemiyan baştir dizanî ku şikesteke giran xwariye:

Yekem: Xebata li çiya

-Wisa nîşan dida ku pirsa Kurd hertim bêdeng bûye, û hizbên Kurdistanê, û bi taybetî PDKÎ ber bi jinavçûnê ve diçin, û çi ji wan nemaye. Lê em dibînin ku ewqas tirsa wan ji partiyên Kurdistanî û PDKÎ heye, ku her rojê, yek ji wan gefan dixwe.
-Li Şino û Kosalanê rejîm û hêza wê ya terorîst baş dizanin, ku çiqas zirar dîtine, û rastî çi têkşikaneke pirr ji şerm hatine, lê ji vê zirarê zêdetir, ew hêzên ser bi rejîmê ne, ku bi sala ye, rejîm wan xwedî dike, lê di dema şer de amade nebûn, ku digel pêşmerge şer bikin, û Spaha Pasdaran ew destbiser kirine, ku ew yek bixwe têkçûna herî mezin a leşkerî ye bo Spaha Pasdaran a terorîst.

-Xalên din ên vê pirsê emê bihêlin bo carek din

Duyem, Xebata li bajar:

-Wek hertim û gellek xalên din, rejîmê wisa nîşan dida ku Kurd li Kurdistana Rojhilat, bi tewahî teslîmî Komara Îslamî bûye, û herwekî ku fermandê derevker ê Spaha Pasdaran, li televîzyona rejîmê di Sinê de digot ku fermandê pêşmergeyên Demokrat, nivîsandiye ku xelk bi me re nînin, û digel rejîmê ne, lê her ew rejîm bixwe baş dizane ku çiqas jin û zarok û xelkê asyaî bi hawara pêşmerge de çûn, û çi cangorîtiyek kirine, ku rejîmê kerba de, dest bi reşbigiriyê kiriye.

-Rejîmê wisa dizanî ku bi çend top û katyoşa û xompareyan, Kurd û Kurdistan çavtisandî dibe, lê li jêr deshilata biyom ya rejîmê û li jêr zexta çekmê hêzên hikûmetê de, gund û bajarên Kurdistanê bi awayekî berçav girev girtin, û rejîm neçar bû ku bi gef û gurran dukanan bi wan bide vekirin.
-Rejîmê wisa hizir dikir ku çalakiyên li Kurdistanê, destçêkiyê derekî ye, û biyanî wan tûj dikin, lê di nav bajarên Kurdistanê de, û di nava dilê xelkê Kurdistanê de, girev girtin, û dengê nerazîbûna li hemberî rejîmê hate bilindkirin.

-Xalên din ên vî biyavî jî bo carek dinTenê li gora van faktan, diyar e ku rejîma kindir û sêdarê çiqas tevizî ye, û çiqas zendeqê wê ji vê xebatê çûye, lewra xebata rewa ya Kurd bûye kabûsa rejîma serberedayî ya Îslamî li Tehranê, û her rojê yek ji wan nikare pêşiya tirsê bigre, û dest dikin bi gefxwarinan, da ku di vê navberê de, bi hawa hawarê, tirsa xwe veşêrin.

## Partiya Demokrat di cejna salvegera "Roja Nîştimanî"ya Feransê de, beşdarî kir

**Heyeteke Partiya Demokrata Kurdistana Îranê, bi serperestiya, Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî a Partiya Demokrata Kurdistana Îranê, di cejna salvegera welatê Feransê de beşdarî kir.**



Li gorî rapora ku gihaye malpera Kurdistanmedia, roja Pênşemiyê 15'ê Tîrmeha 2016'an, ji aliyê Balyozxaneya welatê Feransê ya bajarê Hewlêrê, PDKÎ bi awayekî fermî hatibû gazîkirin, her bi vê boneyê jî, heyeteke Partiya Demokrata Kurdistana Îranê, bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî a Partiya Demokrat, li cejna salvegera roja nîştimaniya dewleta Feransê de beşdarî kir, û her bi vê boneyê jî pîrozbahiyên sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi Alan Gîpçan berpirsê giştî yê balyozxaneya wî welatî ragehand.

Herwiha di vê merasimê de, heyeta Partiya Demokrata Kurdistana Îranê, digel çend berpirsên Balyozxaneyên welatên din yên ku di vê merasimê de beşdar bûn, û kesayetiyên siyasî û dîplomatan hevdîtên pêk anî.

Her di vê merasimê de, berpirsê giştî yê vê balyozxaneya Feransê, di axavtinên xwe de, rola pêşmergên Kurdistanê di şerê dijî terorîzmê, û herwiha berevankirin ji pêkhateyên cur bi cur di Herêma Kurdistan de bilin nirxand, û herwiha pêdagirî li ser dostîniya welatê Feransê digel gelê Kurdistanê kir.

Piştre peyama Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji aliyê, Felah Mistefa berpirsê Deftera Pêwendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve hat pêşkêşkirin.

## PDKÎ tohmet û çewtekariyên Muhsin Rezayî ret dike

**Deftera Siyasî ya PDKÎ di daxuyaniyekê de, tevî retkirina çewtekariyan û îdi'ayên bê bingeh ên Muhsin Rizayî kevne fermandarê Spaha Pasdaran radigehîne ku xebat di pêxema azadiya neteweya Kurd li Kurdistana Rojhilat de, wê dirêjî hebe.**

Deqa daxuyaniyê:

Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ

Êrîşên van dawiyane ên hêzên serkutkar ên rejîma Komara Îslamî a Îranê, li dijî kadr û pêşmerge û têkoşerên PDKÎ li Kurdistana Rojhilat û berxwedana têkoşerên PDKÎ li Kurdistana Rojhlat, bûne sedem ku çend şer û pevçûn rû bidin. Di vê derheqê de karbidetsên payebilind ên leşkerî û hikûmetî ên rejîma Îranê her yek ji wan bi awayekî, û bi zimanê gefxwarinan rabûne ser xwe, û heya bi kiryar jî herêmên sînorî ên Hacî Omeran û Sîdekan di Herêma Kurdistanê de topbaran kirin, û zirara malî û canî gehandin xelkê van herêman.
Di doma wan gefxwarinên rejîmê de, roja Yekşemiyê 27.04.1395'an (17'ê Tîrmehê), Muhsin Rizayî fermandarê kevn ê Spaha Pasdaran a rejîma Îranê, û sekreterê "Konseya Diyarîkirina Berjewendiyên Nizamê", di gotûbêjeke televîzyonî de, tevî rexnekirina




çend welatên herêmê û gefxwarina li wan, ew tohmetbar kirin bi vê ku, pişta hêzên Kurdî ên Kurdistana Rojhilat digrin, û di herêmên sînorî de binke ji wan re vekirine. Di vê derheqê ji rêzdar Mes'ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê dixwaze, ku hekî fikrekê ji vê pirsê re neke, ew ê bi zûyî kiryarên

»»» R:10

# Deftera Siyasî ya PDKÎ spasiya xelkê Kurdistanê kir

**Deftera Siyasî ya PDKÎ di daxûyaniyekî de serbarê amaje bi zext û givaşên rejîmê, bona rêgirtin ji birêvebirina gireva giştî ya roja 22’ê Pûşperê, spasa helwêst û kiryara xelkê Kurdistanê kir ku, bê guhdan bi zext û givaşên rejîmê, dengê dijatîkirina xwe digel terorîzma Komara Îslamî ya Îranê bilind kirin, û pêşwazî ji berfirehtirkirina xebatê û bihevregirêdana xebata çiya û bajar kirin.**

**Eva deqa daxûyaniyê ye:**

Piştî bangewaza Komisyona Teşkîlat ya PDKÎ û daxwaza ji civatên xelkê Kurdistanê, bi merema encamdana kiryareke nerazîbûnê ya berfireh û giştî, di roja Sêşemî berwarê 22’ê Pûşpera îsal, 27’mîn salvegera terora Dr. Qasimlo, bona mehkûmkirina terorîzma Komara Îslamî ya Îranê, û nîşandana bêzariya xwe ji rejîmê, û herweha ducarîkirina wefadariya xwe bi rêbaz û siyasetên Hizba Qasimlo, û ji vê jî zêdetir bi mebesta pêşwazîkirina ji berfirehtirkirina xebatê û bihevregirêdanba xebata çiya û bajar, rejîma Komara Îslamî bona rêgirî ji hereketekî weha, weke berê dest avête gefxwarinên curbicur li xelkê, û bitaybetî kasibkaran, û ji rêya dezgehên Îtila’atî, Spaha Pasdaran, odeya bazirgan û esnafan (xwedî pîşeyan) û, hewl da ku xelkê Kurdistanê di bin zext û givaşê û zor û gefan de bersiva erênî nedin vê bangewazê. Lê civatên xelkê Kudristanê serbarê hemû van gefxwarinan û milîtarîzekirina rewa bajaran, bi berçavgirtina nirx û bihayê encamdayîna hereketek bi vî rengî, bersiveke erênî û hêjayî xebatkarbûna xwe, dane bangewaza PDKÎ, û misteke bihêz li ser sîngê rejîmê û dem û dezgehên wê dan.

Wan bi daxistina dukan û bazar û neçûna bo ser kar, û berçavgirtina biryarên PDKÎ di vê derheqê de, wekî salên pêşîn nîşan dan, ku ne tenê li ser bîr û baweriyên xwe, û daxwaziyên xwe yên siyasî û bingehîn pêdagir in, belku herwisa palpiştê bihêz ê PDKÎ ne, û wan selimand ku gefxwarinên Komara Îslamî ya Îranê ji xwe dûr xistine, û li ser vê baweriyê ne ku ew tirs dibe bo hertim bê rijandin (verewandin). Lewra roja Sêşemiyê (22’ê Pûşperê), hemû aliyekî nîşanên cesûrî û çavnetirsî û xebatkarî û xweragiriya civatên xelkê Kurdistanê di nava mij û dûmana gef û gurr û zext û givaşên rejîmê de, bi bilindî dît, û hemû aliyek jî xatircem kirin, ku bajar deng û peyama çiya bihîst, û bi dil û can wergirt, û hemû şêweyên xebata rewa hevdu himbêz kirine.

Ev hişyariya siyasî pîroz be li civatên xelkê Kurdistanê

Xortên netewa Kurd!

Xelkê birîndar û mafxwarî yê Kurdistanê!

We bi cesûrî û çavnetirsiya xwe di roja 22’ê Pûşperê, 27’mîn salvegera terora Dr. Qasimlo de, him misteke bihêz li ser devê rejîma terorîst û terorîstperwer ya Komara Îslamî ya Îranê xist, û him jî we wefadariya xwe bo rêbaza Qasimlo û siyaset û biryarên hizba xwe, wate PDKÎ ducarî kir, û him jî bi girîng nirxandina




bihevre girêdana xebata çiya û bajar, bersiveke guncaw gihande guhê dost û dujminan, û mizgîniya vê yekê, we da ku, di pêşerojê de bajarên Kurdistanê pitir ji berê, wê bibin çepera xebat û berxwedana rewa di şikl û şêweyên curbicur de.

We nîşan da ku xebata di pêxema gehîştin bi mafên demokratîk û netwî ên me de, erkê yek bi yek ji xelkê Kurdistanê ye, û we selimand ku bi yekdengî û yekhelwêstiyê, em dikarin bi ser dujmin û neyarên Kurdan de serkevin, û pîlanên wan yên curbicur pûç bikin.
Bitaybetî hevdem digel pêşwaziya bajarên Kurdistana Rojhilat, xortên Kurdan li welatên derve û di beşên din ên Kurdistanê de, bi birêvebirina meşên nerazîbûnê û rêûresmên taybet, dengê xwe bilind kirin û pêngavên hewce di vê derheqê de avêtin.

Rêberiya PDKÎ ev gireva berfireh û berçav ya we, serbarê pîrozbayî û pêzanînê, bilind û bibandor dinirxîne, û weke despêkekê bona xebatek berfirehtir li seranserî Kurdistanê dinêre, û her weke berê bi piştevanî û piştgiriya civatên xelkê Kurdistanê, piştqahîm e.

Careke din spas û pêzanîn bo endam, alîgirên Hizbê û hemû azadîxwazên Kurd li Kurdistana Rojhilat, ku bi awayekî berçav peyama Hizbê gihandin, û herweha bi boneya pişikdariya di gireva giştî ya bicih û bibandor, ya roja Sêşemî 22’ê Pûşpera îsal.

Berdewam û yekgirtî be, berxwedana xelkê Kurdistanê
Bibandortir be, xebata lihevdu girêdana xebata çiya û bajar.

Biser keve, xebata hemûyan di pêxema gehîştin bi hêvî û armanca şehîdan, û maf û azadiyên xelkê Kurdistana Rojhilat.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**

**23’ê Pûşpera sala 1395’an a Rojî**
**13’ê Tîrmeha sala 2016’an a Zayînî**

# Bavê şehîdekî rêya azadiya Kurdistanê li bajarê Mehabadê çû ser dilovaniya xwe

**Mam Ebdullah Qadirî naskirî bi Ebdulla Surall li temenê 92 saliyê de, çû ser dilowaniya xwe.**

Li gorî rapora ku gihaye malpera Kurdistanmedia, Mam Ebdulla naskirî bi Ebdulla Surall bavê şehîd Ebubekir Qadirî, xelkê bajarê Mehabadê, li temenê, 92 saliyê de, çûye ser dilovaniya xwe.

Navbirî, kesayetiyeke naskirî û niştîmanperwer bû, û çend caran jî ji aliyê rejîmê ve hatibû binçavkirin.

Şehîd Ebûbekir Qadirî, pêşmergê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, sala 1340’î a Rojî li gundê Yaltemir a ser bi bajarê Mehabadê hatibû dinê, û di şerekî qehremanane, li dijî dagîrkerên Kurdistanê, di meha Gelawêja 1358’an a Rojî li Mehabadê de hatibû şehîd kirin.
Partiya Demokrata Kurdistana Îranê, sersaxiyê dibêje malbat û kes û karên wî, û xwe di vê xem û kesera wan de şirîk dizane.



# Deftera Siyasî ya PDKÎ derbarê doma pevçûnên Kosalanê daxuyaniyek belav kir

**Polîtburoya PDKÎ, derbarê şer û pevçûnên çiyayê Kosalan ên di navbera hêzên Pêşmergeyên PDKÎ û dagirkerên Kurdistanê de daxuyaniyek çapemeniyê bo raya giştî belav kir.**

**Eva deqa daxuyaniyê ye :**

Piştî derbasbûna 10 rojan ji pevçûnên roja şemî 5ê Pûşpera 1395 a Rojî (25.06.2016), di navbera hêzên dijî gelî yên Komara Îslamî ya Îranê de û komek ji Pêşmergeyên PDKÎ li çiyayê Kosalan li herêma Sewlava ku bû sedema kuştin û birîndarbûna hejmareke berçav ji kirêgirtiyên rêjîmê, Pêşmergeyên PDKÎ bi dayîna 3 şehîdan destaneke din ji hemase û berxwedanê tomar kirin.

Roja sêşem 15ê Pûşpera 1395an a Rojî (05.07.2016), 2 pêşmergeyên veqetiyayî ji koma şerê Kosalanê û dûrketin li cihê şer û cihgirbûna wan li nêzîk gundê Borîyer ji aliyê caş û pasdarên Komara Îslamî ya Îranê ve û bi piştevaniya topxane û mûşekên katyoşa û çekên giran ên cor be cor tên dorpêçkirin û piştî şereke 2 demjimêrî yê bi xwîn û giran di navbera wan 2 fîdakar û xdebatkarên demokrat de ji aliyekê û hêzên zêde û xwedî hemû îmkanên leşkerî ên rejîmê ji aliyê din diqewime.

Qehremanên demokrat piştî kuştin û birîndarkirina hejmarek ji caş û pasdaran û xilasbûna alevên wan ên berevaniyê, bona ku bi saxî nekevin desgtê dijmin û bi êxsîrî neyên girtin, narincoka destî bi xwe de diteqînin û gellek mixabin şehîd dibin û diçin refa şehîdên hizb û gel. Du şehîdên me yên nû şehîd Davud Cewanmerd naskirî bi Kawe endamê Komîteya Navendî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û şehîd Serkewt Semedî kadroyê PDKÎ.

Deftera Siyasî ya PDKÎ ligel xembarbûna xwe bo şehîdbûna wan du xebatkaran, sersaxiyê ji hemû hevalan, malbatên wan ên rêzdar dike û ji destçûna wan bi xesareke mezin dizane bo Hizba Demokrat û tevgera kurd, di heman demê de ku hevçeperên wan rêbaza wan du şehîdan û şehîdên din ên rêya azadiya Kurdistanê didomînin,




dê vê rêbaza wan ya tejî rûmet heta gihîştin bi hêviyên wan berdewam bikin û bi gotina rêberê mezin Dr. Qasimlo ku dibêje : « xelat û xizmeta herî baş bo şehîdan domandina rêya wan e. » jiyanname û têkoşîna wan du şehîdên mezin bi cuda îû bi hûrî dê werin belavkirin.
Riha şehîdên me yên nû Kawe Cewanmerd û Serkewt Semedî û hemû şehîdên rêya azadiyê şad be û rêbaza tejî rêving be û bi hêviya bicîhatina hêviyên wan.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**

**18'ê Pûşpera 1395 a Rojî**
**08.07.2016**

# Jiyannameya şehîd Kawe Cewanmerd û Serkewt Semedî

**Şehîd Davûd Cewanmerd naskirî bi "Kawe" kurê şehîd Necmedîn Kawe Cewanmerd, li sala 1358 (1980)'î, di bajarê Sine de, ji dayîk bû. Xwendina xwe heta wergirtina dîplomê domand. Temenê wî 5 sal bû ku bavê wî wekî endamê PDKÎ ji aliyê dezgehên ewlekariya rêjîmê ve hate girtin, û piştî sepandina cezayê ne rewa yê darvekirinê li ser navborî, hate şehîdkirin.**

Şehîd Kawe ji xeynî karkirin bona dabînkirina debara jiayna malbatê gellek ji karê siyasî di rêbaza tejî rûmet a bavê xwe hebû û ew hest bi rêya rojnamevaniyê bi awayekî çalak dimeşand û di heman demê de yek ji çalakvan û rêkxerên nerazîbûnên nav bajarê Sine bû.

Serencam sala 1380'î a Rojî (2001)'an, bi rêya hevalên rêxistina nav bajarê Sine ve peywendiya rasterast ligel Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê girt û piştî wergirtina rûmeta endambûnê, erkên xwe yên pê sipartî bi awayekî baş û bi jêhatiyane li hundirê Kurdistanê cî bi cî dikir. Bi tometa wan çalakiyan sala 1384an a Rojî (2005) hatibû binçavkirin û bi 5 salan bi tawan çalakiyên siyasî û rêxistinê li nav bajar di girtîgehê de ma. Piştî azadbûn li girtîgehê erkê karê rêxistinî li nav bajarê Sine bi stû girt û ew erk bi awayekî herî baş birêve bir û roleke gellek bi bandor di vî warî de lîst.

Sala 1388an a Rojî (2009) bi sedema eşkerebûn û egera girtina wî ya dubare xwe gihand refên pPêşmergeyên PDKÎ û piştî beşdarîkirin di Dewreya 193 a Destpêkî bona perwerdeya Pêşmerge di bihara 1389 (2010)an de bi fermî cil û bergên tejî rûmet ê Pêşmergatiyê li xwe kirin.

Şehîd Kawe di berdewqamiya kar û çalakiyên hizbê de gellek erk û berpirsiyarî wergirtin, weke rêveberê malperên partiyê û bi sedema jêhatîbûna wî di kongra 15 a PDKÎ de weke endamê Komîta navendî hat hilbijartin. Piştî ku bû endamê Komîta Navendî ya partiyê, berpirsiyariya TIŞK TV li Kurdistanê girte stû û xizmetên mezin di vî warî de encam da û di sala 1394 (2015)an de weke berpirsyarê Rêxistina eşkere ya PDKÎ




jê re hate sipartin û di vî erkî de jî gellek jêhatiyane kar kêrhatîbûna xwe nîşan da. Mixabin roja 15ê Pûşpera 1395an 05.07.2016 li gundê Borîyer ligel hevçeperê xwe şehîd Serkewt Semedî hate şehîdkirin.

Jiyannameya şehîd Serkewt Semedî

Şehîd Serkewt Semedî kurê Yunis sala 1359 (1980)'an, di gundê "Serumalî" ya Sewlawa de ji dayîk bû, û xwendina xwe heya dewreya paş nawendî , û bi sedema rewşa malbata xwe, neçar dimîne, ku dev ji xwendinê berde, û dest bi kar û kasibiyê bike, û di vê derheqê de, li çend bajarên dûr û nêzîk ên wekî Tehran û Meşhedê de kar kir. Yekem çalakiya wî ya siyasî beşdarîkirin bû di rêûresma

# Kurdistanê bangewaza Hizba Demokrat bi “Belê” bersiv da – rapora hejmar 1

**Xelkê Kurdistana Rojhilat di roja 22’ê Pûşperê de, dokan û bazarên xwe daxistin û bersiva bangewaza PDKÎ bi “Belê” vedan.**

Li gorî nûçeya gehiştî malpera Kurdistanmedia yê, xelkê Kurdistana Rojhilat di roja 22’ê Pûşperê 27’mîn salvegera sehîdkirina Dr.Qasimlo û hevalên wî de, bi destên dîplomat terorîstên rejîma Îslamî ya Îranê de, piştî bangewaza girevê ji aliyê PDKÎ ve, dokan û bazarên xwe daxistin.

Li gorî rapora Kurdistanamedia yê, bajarên Seqiz, Mihabat, Şino, Merîwan û Urmiyê dokan û bazarên xwe daxistin û peymana wefadariya xwe tevî PDKÎ û şehîdên nû ên vê partiyê, nû kirin.

Eva di demekî de ye ku karbidestên “Emakin” a bajarê Seqizê gef li xelkê dokandar û bazarî xwaribûn ku, nabê girevê birêve bibin.

Herweha rejîmê ji rêya organên din ên ewlekariyê ên weke Îtila’at û Spahê ve, gefên taybet ji wan kesan xwarine ku keysên siyasî hene, yan jî kesek ji malbata wan siyasî ye, ku nabe bi tu awayekî hewlê bidin ku ev girev birêve here.

Rejîma Îslamî ya Îranê ev gef ji rêya serdan, gazîkirin û Telefonê ve ji xwelkê xwarine.

Rapora gehiştî destê Kurdistanmediayê bas ji vê yekê dike ku, hêzên ser bi rejîmê ji rêya Telefonê dokandaran haydar dike û bi zor wan neçar dike ku dukanên xwe vekirn.

Hatiye ragehandin ku li bajarên Mihabat û Merîwanê jî, xelkê Kurdistanê pêşwazî ji bangewaza PDKÎ kirin û bi “Belê” bersiva vê bangewaza vê partiyê vedan.

Hate ragehandin ku li bajarê Pîranşarê jî, rejîmê gef ji dokandaran xwarine ku nabe dokan û bazarên xwe



dabixin.

Her di vê derheqê de hatiye ragehandin ku li bajarokê Dizê ya Mirgewer jî, hêzên Îtila’atê daketine nava bajar de û wêneya wan dokanan girtine ku daxistî bûne.

Li gorî rapora ku gihaye destê Kurdistanmedia yê, dokan û bazarên bajarê Mihabadê bi awayekî berçav daxistî bûne û hatin û çûyîna di nava bajar de gellek kêm e.

---

newrozê û hilkirina agirê newrozê di sala 1374 (1995)’an de, ku bi vê sedemê hate girtin.

Şehîd Serkewt Semedî sala 1378 (1999)’an bi awayekî fermî hate nava refa pêşmergeyên PDKÎ de, û piştî derbazkirina dewreya destpêkî ya pêşmerge, kar û tekoşîna xwe di Fêrgeha Siyasî-Nizamî a PDKÎ de dest pê kir, û di vê derheqê de, çend carî bi sedema kar û çalakiyên xwe rêz jê hate girtin,

Şehîd Serkewt Semedî di sala 1384 (2005)’an de, pileya kadriyê wergirt, û piştre dibe cihgirê berpirsê Fêrgehê, û hevdem cihgirê fermandê hêza taybet bû, û di vê derheqê de jî, kêrhatîbûna xwe selimand. Şehîd Serkewt Semedî di sala 1391 (2012)’an de dikare dewreyeke din ya siyasî bibîne, û bibe kadrê pile 3 ê PDKÎ. Mixabin roja 15’ê Pûşperê (05.07.2016)’an, tevlî karwanê şehîdên sorxelat ên hizb û gel dibe.

**“Xelata herî baş bo şehîdan, domandina riya wan e”.**
**Dr. Qasaimlo**

**Riya şehîdan pirr rêvîng be.**

# Kurdistanê bona bîranîna rêberê xwe yê navdar girev girt Rapora hejmar – 2

**Di doma gireva giştî ya Kurdistanê de, nûçeya gireva xelkê bajarên din û herweha liv û tevgerên hêzên rejîmê bona tirsandina xelkê, gihane destê me.**

Di rapora berê de nûçeya gireva giştî ya Kurdistana Rojhilat gihaye destê me û me belav kir, lê nûçegihanên me li çend bajarên din ên Kurdistanê ragehandin ku, xelkê çend bajarên din ên Kurdistanê jî, daketin nava gireva giştî de û bi awayekî rêjeyî dokan û bazarên xwe daxistine û ew bajar di nava bêdengiyê de ne, û girev bi eşkere xûya dike.

Li bajarên Sine, Kirmaşan, Pîranşar, Pawe û Nexedê jî nûçegihanên me ragehandin ku, serbarê qutkirina hêla Êntêrnêtê bona bêdengkirina dengê xelkê di nava girevê de, lê nûçeya gireva bajarên Kurdistanê di nava xelkê de belav bûne, û nûçeya wan çalakiyan gellek bi zehmet gihane destê malpera Kurdistanmedia yê.

Nûçegihanên Kurdistanmediayê li bajarên Sine, Kirmaşan, Pawe, Pîranşar,



Mihabat, Seqiz, Bokan, Şino, Merîwan, Kamyaran û Urmiyê ve ragehandin ku, rejîmê hêzeke berçav di nava wan bajaran de cihgîr kiriye û li her kes û tirumbêlekî biguman bin, dipirsin, û rewşa wan bajaran bi tewahî milîtarîze hatiye kirin.

Li gelek bajarên Kurdistanê hêzên ser bi rejîma Îslamî ya Îranê bi zor xelik neçar kirine ku dokan û bazarên xwe vekin, lê hatiye zanîn ku bi giştî xelkê Kurdistanê bersiva rejîmê bi zelalî vedaye.

# "Rasan"ê bêdengiya Rojhilat şikand



Azad Kurdî

Midehek bû ku nîgeraniya li hemberî bêdengbûna Kurdistana Rojhilat û rojevnebûna pirsên Rojhilat, di medyayên navnetewî û herêmî û ji hemûyan pitir hundirê Kurdistanê de ber bi zêdebûnê ve çûbû. Me didît ku gellek bi zehmetî li medyayên cîhanî de bas ji rewşa Kurd li Kurdistana Rojhilat dihat kirin, serbarê wan hemû zulm û tepeserkirin û binpêkirinên maf û azadiyên netewên Îranê ku ji aliyê rejîma dîktator û deshilatdar bi ser welat de bi rê ve diçû, û bi rê ve diçe, Kurdên Rojhilat xwediyê rewşa herî xirab ya siyasî, mafê mirov, aborî û civakî ye, li ser asta herçar beşên Kurdistanê.

Lewra Hewcehiyekî dîrokî û îroyî bû ku Rojhilat ji rewşa niha derkeve, û dengê xwe yê mafxwazane bilind bike û bibe rojeva navxwe ya Kurdistan û herêm û tenanet medyayên cîhanê. Jiber ku rejîma zal bi ser Kurdistanê de, bi tu awayekî tenanet yek pêngav jî bona çareseriya pirsa Kurd hil nagire, û di wan heyaman de ku xebata çiya hinekî bêdeng bibû, tenanet hewla tevalî dida ku di vê qonaxê de jî, ji rewşê mifaha xirab bi qazanca xwe bistîne.
Rejîma Îslamî ya Îranê di bingeh û cewhera xwe de bawerî bi çareseriya pirsa Kurd û netewên din ên Îranê nebûye û nine. Piraniya çalakvanên medenî û siyasî ku di van heyaman de daxwazên xwe yên herî kêm li dor mafên xwe ên medenî û siyasî li Rojhilat bilind kirin, an hatine girtin û îşkencekirin û zîndanîkirin, an jî neçar man ku Rojhilat bicih bihêlin. Xebata medenî û aşîtîxwazane digel hikûmeteke medenî û demokratîk cih digire, ne hikûmetek temam îdolojîk û serberedayî û stemkar.

PDKÎ heyamek dirêj bû ku bi başî rewşa niha û guherînkariyên hundirê Kurdstana Rojhilat û beşên din ên Kurdistanê, û herweha hemû herêma Rojhilata Navîn û cîhanê bi hûrî şirove dikir. Lewra biryardan bona vejiyana xebata netewî demokratîk a Kurd li Kurdistana Rojhilat û bilindkirina dengê mafxwaziya xelkê Kurdistanê, û şikandina vê bêdengiyê, ji partiya Demokrat a Kurdistana Îranê dihat çavnihêrîkirin. Bi sedema rola sereke û bibandor û karîgeriya Hizbê di qonaxên curbicur ên Kurdistanê de, gerek pêngaveke piraktîkî bo Kurdistana Rojhilat bê hilgirtin, ku bi xweşî ve bi îradeya şoreşvanî ve, ev qonax dest pê bû.

Di sala derbazbûyî de pêşmergeyên xweştevî ên xelkê Kurdistanê xwe gihandin ser sînorên Kurdistana Rojhilat û vegeriyana wan bi awayê deste deste bo nava xelkê mafxwazê Kurdistanê û vegeriyana hêviyeke bê mînak bo xelkê Kurdistanê, tilisma hewildan bo dûrxistin û ji hevdu veqetandina xelk û pêşmerge, hate şikandin.



Vê yekê jî ev rastî selimand ku, tu carî xelk û pêşmerge ji hevdu naqetiyên û gerek bi hev re bin, heya ji holê derxistina zulm û zordariyê. Piştre di Newroza Îsal de Hizba Demokrat ji ziman sekreterê giştî ve, peyama dîrokî û girîng ya bihev re girêdana xebata bajar û çiya, belav kir, û soza zîndîkirina xebata Rojhilat li ser destê hêza rizgarker ya Kurdistanê, wate pêşmerge, Kurdistana Rojhilat bike rojeva hemû astên navxweyî û herêmî û cîhanî. Ew soz û peyama Buhara îsal çû qonaxa cîbicîkirinê, û hêvî û baweriyên gelê me, çend qat zêdetir kir.

Xortên cangorî ên Kurdistanê bona peywendî û têkiliyên rasterast digel xelkê welatparêz yê Kurdistana Rojhilat û nirxandin û şirovekirina pirsên girîng ên jiyan û çarenivîsa wan, û guherîna bîrûrayan di navbera pêşmerge û xelkê Kurdistanê de, û herweha rêkxistina meydanî ya xelkê, bona xebata mafxwazane, û herweha eşkerekirin û hişyarîdan li ser pîlan û siyasetên qirêj ên rejîma Îslamî ya Îranê, deste deste û pol bi pol vegeriyan hembêza gel, û stratejiya bihevregirêdana xebata çiya û bajar, bi kiryar cîbicî kirin.

Destpêkirina vê "Rasan"ê, deshilatdarên zalim ên Tehranê tûşî tirs û dilkutokek zêde kiriye û li gorî xwezaya dirinde û hov û dijîgelîbûna Spaha terorîst ya Pasdarên rejîma Îslamî ya Îranê, dihat çavnihêrîkirin ku êrîş bikin ser pêşmerge û rizgarîkerê gelê xwe.
Mixabin di wan çend êrîşan de, leheng û qehremanên Demokrat piştî afirandina hemaseyên mezin di şerên naberamber de, li "Qereseqel" ya Şino yê û Kosalan û Sewlawa û Boryer a Merîwanê, çendîn qehremanên mezin ên me, tevlî karwanê şehîdên azadiya Kurdistanê bûn.

Lê wan bi xwîna xwe û bi îradeya xwe ya bilind tevî hemû pêşmergeyên din ên cangorî, bêdengiya sepandî bi ser Kurdistana Rojhilat de şikandin, û hêviyeke nû dan gelê xwe, û êdî ev peywendiya han tu carî di navbera pêşmerge û gel de, nahê veqetandin. Peyama Newrozî ya destpêkirina "Rasan"ê, û qonaxeke nû ya xebat û tekoşîna mafxwazane ya gelê Kurd li Rojhilat, ji aliyê Hizba Demokrat ve, û wan şer û pevçûnên di navbera hêza pêşmergeyên PDKÎ û çekdarên dagîrker ên Kurdistanê derketin holê, dengvedanên mezin ên navxweyî, herêmî û navdewletî bi dû xwe re anîn, û tilisma bêdengiya Rojhilat şikandin.

# Dengê bi gurr yê çiya, bi gireva bajar hate bersivdan, Rapora hejmar – 3

**gireva giştî ya Kurdistana Rojhilat çendîn bajar û gundên din bi awayekî rêjeyî li xwe girtin.**

Ew bajar û gundên Kurdistana Rojhilat ku di pêvajûya girevê de dokan û bazar lê hatibûne daxistin pêk tên ji, bajarên Bane, Kamyaran, Serdeşt û Sewlawa.

Di van bajaran de bi awayekî rêjeyî dokan û bazar hatibûn daxistin û hevdem liv û tevgerên hêzên ewlekariyê ên ser bi rejîma terorîst ya Komara Îslamî ya Îranê bi awayekî berçav xûya dikir.

Hate ragehandin ku bajarên Sine, Bokan, Pawe, Seqiz, Merîwan û çendîn bajarên din piştî nivro jî liser gireva xwe berdewam in, bitaybetî li bajarê "Sine" girev bi awayekî gelek berçav birêve diçe û cihên qerebalîx ên bajar bi tewahî di girevê de ne.

Li gorî hinek zaniyariyan li bajarê Kirmaşanê, rejîmê êrîş biriye ser hinek dokanên daxistî û "Qifla" wan dokanan ji aliyê wan ve hatine şikandin.

Nûçegihanê Kurdistanmediayê herweh eşkere kir ku li gelek gundên weke Niyer û Tengîser û Boriyerê, serbarê belavkirina tirakt û pûstêr û nivîsandina dirûşman,



xelik bi tewahî di girevê de ye.

Hewceyî basê ye ku di raporên berê de girev û daxistina dokan û bazarên bajarên weke Urmiye, Bokan, Nexede û herweha beşek ji Pîranşarê hatine belavkirin.

# Nerîna Lîderan



Mistefa Hicrî: **"Em digel netewe û xelkê Fransayê li dijî terorê ne".**



General Ozturk: **"Ez beşdarî darbeyê nebûm".**



Erdoxan: **"Hekî parlemento hukmê îdamê bipejirîne, ezê jî vî hukmî îmze bikim".**



Cenetî: **"Mahware qedexe ye, lê %70 ji xelkê mahware di malên xwe de hene".**

## Angila Mêrkil: Tirkiye nabe mafê bingehîn ê kûdetaçiyan binpê bike

**Serbarê vê ku Angila Mêrkil û Franswa Oland kûdetaya li dijî hikûmeta Tirkiyê protesto kirin, di heman demê de daxwaz ji rayedarên Tirkiyê kirin ku tundûtîjiyê li dijî wan bi kar nehînin.**

Li gora nûçegihaniyan, piştî sernekevtina kûdetayê (derbeya leşkerî) Barak Obama digel şêvirmendên xwe yên karûbarê ewlekarî û siyaseta derekî, civîneke ne asayî (awarte) pêk anî, û tê de bas ji rewşa niha ya Tirkiyê kirin.

Ji aliyekî din ve bi sedema vê ku binkeya Încirlîkê hatiye daxistin, û rabûna balafiran di esmanê Tirkiyê de hatiye qedexekirin, Amerîka nikare vê binkeyê bona lêdana DAÎŞ'ê bi kar bîne.

Li gora zanyariyan, nêzî 2200 pirsonêlên leşkerî û xeyrî leşkerî ên



Amerîkayê di Tirkiyê de ne.

Her piştî serneketina derbeya leşkerî ya Tirkiyê Angila Mêrkil bi tundî ew derbeya leşkerî şermezar kir, û daxwaz ji Erdoxan kir, ku di dema serederiya digel derbekaran (kûdetaçiyan) mafê wan ê bingehîn berçav bigre, û prensîpên dewleteke demokratîk bi cî bîne.

Hevdem serkomarê Fransayê jî, nîgeraniya xwe derheq egera bikaranîna tundûtîjî û serkuta tund li dijî derbekaran anî ziman.

## Kuştiyên Spaha Pasdaran di şerê Sewlava û Boriyer de li jêr navên din tên veşartin

**Spaha terorîstî ya Pasdarên Îranê, piştî şerê ligel Pêşmergeyên PDKÎ li Sewlava û Boriyer, derbarê kuştiyên wan du şeran bi awayê cor be cor raya giştî dixapîne û awayê kuştina Pasdaran diveşêre.**

Li gor agahiyan ji herêmê hatine şandin, Spaha terorîstî ya Pasdarên Îranê di şerê ligel Pêşmergeyên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de, derbeyên giran xwariye û çendîn kuştî û bi dehan birîndar hebûye. Lê ji ber ku morala Pasdar û kirêgirtiyên wan danekeve û lawaz nebe, hejmara kuştî û birîndaran ranagehîne û tenê behsa kuştina çaran kiriye.

Li gor agahiyên ku gihîştine malpera Kurdistanmedia, Sipaha Pasdaran kelexên kuştiyên xwe û herwiha birîndara, bo bajarên derdor veguhastine da ku hejmara durist nekeve destê xelkê û niha kelexên kuştiyan li ser destên wan mane, niha Sipaha terorîst dixwaze li jêr navên cor be cor kelexên kuştiyên xwe çal bike.

Li gor nûçeyên ku li herêmê belav bûne, hêzên rejîmê dixwazin roja pêncşem 24ê Pûşperê li Merîwanê kelexê 31 pasdaran veguhezin bo bajarê Sine ku qaşo ev 31 kelex paşmayiyên kuştiyên şerê Îran û Îraqê ne û niha vedibîne !

Eva ku ew kesên ku kelexên wan hatine peydakirin kî ne û rast çi demekê hatine vedîtin ? herwiha li gor gotin û îdeaya wan xwe ew 31 kelex li çend cihên cuda yên Iraqê hatine peydakirin, lê çima hemû anîne Merîwanê û li wir vediguhezin ? û … di vê derbarê de gellek pirs nîşan didin ku ev nûçe û îdeayên rejîmê hemû ne reast in û tenê




bona veşartina rastiya kuştina wan dide xuyakirin.

Li gor agahiyan, Sipaha Pasdaran dixwaze kelexên kuştiyên xwe bi navên cor be cor û yek j iwan paşmayiyên şerê Îran û Iraqê û herwiha kuştiyên şerê Sûriye û … rabigehîne û bi vî awayî di bin barê çewaşekarî û xapandinên xwe derkeve.

## Termê Îraniyekî di nav daristanên di navbera Tirkiye û Bolxaristanê de hate dîtin

**Ajansa Nûçegihaniya Kurdpa: Piştî çend roj birçîtiyê, Îraniyek di sînorê navbera Tirkiye û Bolxaristanê de dimre.**

Berpirsyarên îdareya parastina daristanên Tirkiyê, termê Îraniyekî di nav daristanan, li nêzî gundê Karacadax a ser bi parêzgeh Kirkilaralî ya Tirkiyê dîtin.

Ew ciwanê Îranî temenê wî 28 sal e, û pizşîkê dadwerî ragehandiye ku navbirî 5 rojan birçî û têhnî di nav daristan de maye.
Li gora zanyariyan, navbirî xwastiye ku bi awayekî neyasayî here Yûnan, yan jî Bolxaristanê, û bi sedema neşarezayiyê, riya xwe winda kiribe.



## So'da Kakereş:

## "Çavnihêriya min ji hevjînê min ew e, ku berdewam be li ser şoreşê".



Hevpeyvîn : Behar Rostemî

Pirr zehmet e dema ku miroveke şoreşvan û welatparêz pirr dilxweş û dilgerm e bi tevgera rizgarîxwaziya gelê xwe, û hêvîdar be bi pêşerojeke geş di Kurdistaneke serbest de, lê ji hevdu veqetiyan û cudabûnên kadr û pêşmergeyan ji hizbê bi çavên xwe dibîne.

Jiber ku hêvî û hesretên gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat bi tevgera rizgarîwaziya gelê Kurd bi rêberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê dîrokî û zêde ne, lewra veqetiyana kadr û pêşmergeyên Hizbê û cudakirina çeperên xwe ji çeperên PDKÎ, moral û hêviyên Rojhilat diherifîne û dibe sedema dilêşan û bêhêvîbûna xelkê ji tevgera xwe ya mafxwazane. So'da Kakereş yek ji wan şêrejinên Kurdistana Rojhilat e ku dibêje, "Ez pirr dilxweş û hêvîdar im bi şoreşa PDKÎ, lê cudabûn û veqetiyana beşek ji kadr û pêşmergeyên PDKÎ, gellek min aciz û nerihet dike".

So'da Kakereş keça Salih sala 1970'î a Zayînî (1349), li gundê "Talaw" ya ser bi devera Şamat a bajarê Mihabadê , di malbateke welatparêz û Kurdperwer de, hatiye dinê.

So'da Kakereş derheq bi nasiyariya xwe tevî PDKÎ weha dibêje: "Bi sedema vê ku ez di malbateke siyasî û welatparêz de hatibûme dinê, min ji zarokatiya xwe PDKÎ nas dikir, lê piştî şehîdketina mamê min "Rehîm Kakereş" êdî min biryar da ku ez tevlî refên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bim".

So'da Kakereş di doma hevpeyvîna xwe de bas ji jiyana xwe ya hevpar dike û dibêje: "Sala 1994'an a Zayînî (1373) min jiyana hevpar digel Nasih ava kir. Bi avakirina vê jiyanê ez pitir tevlî jiyana nava şoreşê de bûm, jiber ku hevjînê min pêşmergeyê PDKÎ bû. Niha jî berhema jiyana me kurek bi navê Zanko û herweha du keç bi navên Zirîwe û Zerya ne".

So'da Kakereş piştî bi salan jiyana di nava şoreşê de çavnihêriya xwe ji partiya xwe û hevjînê xwe weha tîne ziman: "Çavnihêriya min ji partiya min eva ye ku, em ku di rastî de di "Landik" a şoreşê de mezin û perwerde bûne, hez dikin ku hemû endamên malbata pêşmergeyên hizbê, weke pêşmerge bêne hesibnadin, wate hem di warê erk û karên hizbî de, û him jî di warê derûnî de.

Çavnihêriya min ji hevjînê min jî eva ye ku, zehmetî û êş û elemên ku me di nava şoreş û jiyana şoreşvaniyê de dîtine, û bi dil û can qebûl kirine, bi avê de bernede, wate li ser rêbaza xwe û pêşmergatiya xwe di refên PDKÎ de, berdewam be".

So'da Kakereş di doma hevpeyvîna xwe de roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Roja herî xweş a jiyana min ew roj bû ku Îtila'ata rejîma Îslamî ya Îranê li pey hevjînê min digeriya da ku destbiser bikin, lê hevjînê min karî ku bi hevkariya hinek ji hevalên xwe ji Îranê bireve û tevlî refên pêşmergên PDKÎ bibe, bihîstina nûçeya derbazbûn û tevlîbûna Nasih bo nava Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, bo min pirr xweş bû, û ez wê rojê tu car ji bîr nakim, herweha dema ku hêzên rejîmê hatin, û pirsa hevjînê min ji min kirin, min gellek bi tundî bersiva wan da, û dilê xwe rihet kir".





So'da Kakereş di hember de roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Bîreweriyên min ên nexwş zêde ne, lê roja herî nexweş, roja veqetiyana hevalên me yên berê bû ji hizbê, jiber ku veqetiyana wan derbeke mezin li PDKÎ û tevgera Kurdistana Rojhilat xist. Eva di demekî de ye ku şehîdketina kak Çeko û hevalên din ên pêşmerge jî, rojên tal in û bîreweriyên ne xweş di hizra mirov de çê dikin".

So'da Kakereş di dawiyê de rû li keç û jin û dayîkên Kurdistanê dike, û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Herçiqas ez ji vê yekê biçûktir im ku peyamê ji keç û jin û dayîkên Kurdistanê re bişînim, lê daxwaza min ji keç û jinên Kurdistanê eva ye ku bona perwerdekirin û xwepêgehandina xwe, yek deqe dem ji dest nedin, da ku zêdetir bikarin di guherînkariyan de xwedî bandor bin".

## Pêşmergeyên PDKÎ xwe bona xebata nû amade dikin



# Çalakên medenî li parka Şaneder çalakiyek li dar xistin

**Çalakên medenî li parka Şaneder bona rêzgirtina ji şehîdên nû ên PDKÎ çalakiyeke medenî bi rê ve birin.**

Di destpêka vê çalakiyê de, Elî Siyasî çalakê siyasî ê Başûra kurdistanê dest bi axivtinê kir, û got: "Em li Başûra Kurdistanê deyndarê Kurdên Rojhilata kurdistanê ne, jiber ku ji sala 1975'ê ve ku şoreşa Kurd li Başûr têk çû, heya sala 1991'ê, Kurdên vê beşê gellek xizmeta me kirin û himbêza xwe ji me re vekirin, lê me li hember de nekarî wan biparêzin û zêdetir ji 300 pêşmergeyên wan di nav xaka Başûra Kurdistanê de hatin terorkiirn, me mixabin bi vî awayî bersiva zehmetên wan da.

Piştre Dr. Hejar mamostayê zankoyê axivî û got: "Kurd bernameyên Erebistanê peya nakin, belkû ew ji bo demokrasiyê hewlê didin, ew cudaxwaz nînin, ew dixwazin ku bi riya aştiyê kêşe werin çareser kirin. Li gora bendeke peymannameya NY, nabe dewlet ew qas zextê bixin ser neteweyan heya ku neçar bin, dest bo çekê bibin".

Axavtinvaneke din ê vê çalakiya medenî, Kak Hîwa bû, ku ragehand: "Emê bejna xwe di hemberî şehêdên Rojhilata Kurdistanê de bitewînin, mixabin ew şehîd yekem şehîd nînin, û ên dawiyê jî nabin, em siyasetên rejîma Îranê derheq Kurdên Rojhilat şermezar dikin, û piştevaniya xwe ji xebata wan radigehînin".

Piştre Hêmin Mîranî mamostayê zankoyê axivî û got: " Dibe rejîma dagîrkar bi siyasetên xwe d ehere, û kêşeya Kurdan çareser bike. Dib bedela şer, û şehîdkirina ciwanên Kurd, rê bide ku ew di birêvebirina welatê xwe de beşdar bin".

Nûnerê rêkxirawa torên medenî jî li hewlêrê ragehand ku Dibe Kurd li Rojhilata Kurdistanê navmala xwe rêk bixin, û dibe bereyekê bi hev re pêk bînin, û hewce ye ku kongireya neteweyî jî bi zûyî bihê girtin, û Kurd bi hev re teba bin, da ku bikarin li hemberî dagîrkaran de bisekinin".

Di dawiyê de Şerîf Felah helbestvanê Kurd, pexşanek li se rşehîdên nû ên PDKÎ pêşkêş kir, piştre beşdaran qevdên gulan li ber wêneyên van şehîdan danîn.










## Rêveberên Nawenda Çalakên Mafê Mirovan a Kurdistanê di daxûyaniyekê de, hevxemiya xwe derheq bi şehîdbûna “Kawe Cewanmerd” nîşan dan

**Rêveberên Nawenda Çalakên Mafê Mirov ên Kurdistanê di peyamekî de hevxemiya xwe bi boneya şehdîbûna Kawe Cewanmerd endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ nîşan dan.**



Eva deqa peyamê ye:

Şehîdbûna çalakekî mafê mirov, birîneke din li ser cesteyê mafê mirovan a Kurdistanê

Şehîdketina “Dawûd Cewanmerd” naskirî bi “Kawe”, rojnamevan û dostê nêzîk yê Nawenda Çalakên Mafê Mirov ên Kurdistanê, xeme û kovaneke kûr xiste ser dilê hemû aliyekî û birîneke din xisete ser cesteya mafê mirov a Kurdistanê.

Şehîd Kawe her di despêka jiyanê de bi îdamkirina babê xwe yê xwştevî “Necmedîn Cewanmerd” di sala 1363’an de, tevî êş û azarên neteweya xwe nasyar bû, her eva jî bûye sedem ku hewlê di pêxema bidestxistina mafên mirovî ên herî despêkî bide û, bi sedema wan hewlên xwe yên di wî warî de, sala 2005’an de (1384) hate destbiserkirin û piştî heyamekî azar û îşkenceya îşkencekaran, serbest tê berdan.

Lê hest bi berpirsayetî û dilsoziya li hember neteweya xwe, jareke din bûye sedem ku liser hewlên xwe yên mirovdostane mikurtir be û di dawiyê de dikeve bin zext û gîwaşa nawendên ewlekariyê ên rejîma Îranê, û di encam de neçar hate kirin ku Rojhilata Kurdistanê bicih bihêle.

Piştî vê ku bi neçarî zêda bab û kalên xwe bicih dihêle, li baregehên PDKÎ de dimîne û hêj jî dest ji hewlên xwe yên mirovdostî berneda û di hewlên xwe ên di warê mafên mirov de, xizmetekî berçav bi berevpêşbirina rewşa mafê mirov li Kurdistana Rojhilat, bitaybetê girtiyên siyasî û medenî dide.

Di dawiyê de her di pêxema netewa xwe û bidestxistina mafên herî despêkî ên netewa xwe li Rojhilata Kurdistanê, berwarê 5’ê Temûza 2016’an (15.04.1395) hevdem digel endamekî din bi navê “Serkewt Semedî” ku ew jî yek ji girtiyên siyasî ên Kurd bûye, li gundê “Boryer” ya nêzîk bi “Sewlawa”ya Merîwanê şehîd ketin.

Di vê peywendiyê de em Rêveberên Nawenda Çalakên Mafê Mirov ên Kurdistanê, xwe bi şirîkê xem û kovana jidestdana Kawe Cewanmerd ê dostê Nawendê, Rojnamevan û çalkakvanê mafê mirov dizanin, û pişrse û sersaxiya xwe dibêjin malbat û dost û hevalên wî şehîdî û hemû şehîdên Kurdistanê.

**Nawenda Çalakên Mafê Mirov ên Kurdistanê**
**18.04.1395’an a Rojî**
**08.07.2016’an a Zayînî**

---

## Doma R:2 (Daxuyanî)

leşkerî û wêrankarane li dijî wan hêzan dest pê bikin, û encam jî her çi be, Serokê Herêma Kurdistanê berpirsyar e.

Em tewahiya wan îdi’ayên bê binghe ên Komara Îslamiya Îranê û axivtinên MuhsinRizayî ret dikin, û em radigehînin ku, berfirehtirkirina xebata li Kurdistana Rojhilat li dijî siyasetên ferq û cudahîdanîn, binpêkirina mafê wan, û serkut û zulm û zordariya rejîma Komara Îslamiya Îranê derheq gelê Kurd, çavkanî ji îradeya PDKÎ ve digre, û li ser daxwaza civatên xelkê Kurdistana Rojhilat e. Xebatek ku heyanî bidestxistina maf û azadiyên neteweya Kurd li Kurdistana Rojhilat wê her dom hebe, û tu gef û tohmetkirinek jî, nikare di pêvîna vê riyê de, bi hemû dijwariyên xwe ve, pêngavên me sist bike.

Ew gotinên Muhsin Rizayî doma wan siyaset û kiryarên Komara Îslamî ya Îranê li dijî dijberan û xelkê Îranê yê nerazî, û li serweyî hemiyan PDKÎ, her ji destpêkê ve, eva bûye ku di cihê çareseriya kêşeyan, û dana mafên wan, bersiva her dengekî dijber û nerazî bi agir û asin û wêrankirinê didin, û di her qonaxekê de, dijberên xwe girêdayî bi aliyekî tohmetbar dikin, û ew yek jî kiryar û siyasetek bûye, ku tu demekê nekariye, ne rêçare be, û ne jî berhemeke dilxweşker bo Komara Îslamî ya Îranê hebe, û niha jî encameke wê ya dilxweşker tunabe.

**Deftera Siyasî**
**PDKÎ**

**30.04.1395**
**20.07.2016**

---

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Ma hûn dizanin ji bo çi yên mezin mizin in? Ji ber ku em li ser jûniyan in. Divê êdî em rabin!
**Stirner**

Peyayên mezin ew in, ku guh nadin mezinahiya xwe.
**Shakespeare**

Hinek mezin tên dinyayê, hinek mezintiyê bi dest dixin, mezintî jî li hinekan tê.
**M. Aurelius**

Cihê ku zelaltî, başî û rastî lê tunebe, mezinahî jî lê peyda nabe.
**Tolstoy**

Zanîn dikane mirov têxe ser rêne çewt, lê bersiva vê zanebûneke hê çêtir û hê bêtir e.
**Asimov**

Hin mirov hene bi zirecêba gerdûnê dizanin, lê xwe nas nakin.
**La Fontaine**

Hemû tiştên ez dizanim, bi tiştekî nizanîbûna min e.
**Sokrates**

Hesin bi hesin, zana jî bi zana dizane.
**Talmud**

Her peyakî mezin ne peyakî zane, her peyakî zane jî ne peyakî mezin e.
**Holmes**

# Ziman

Unîteya 6. Xwarin û Vexwarinên Me



Beşa 1. Dema axaftin û nivîsînê

Xwarin û vexwarinên me













Ez nan dixwim.
Tu penîr dixwî.
Ew mast dixwe.
Em zebeş dixwin.
Hûn hingiv dixwin.
Ew mehîrê dixwin.



Ez avê vedixwim.
Tu şîr vedixwî.
Ew dew vedixwe.
Em çayê vedixwin.
Hûn avmêweyê vedixwin.
Ew xweşavê vedixwin.

NIVÎSKAR
Prof. Dr. Kadri Yıldırım
Yrd. Doç. Dr. Abdurrahman Adak
Yrd. Doç. Dr. Hayrullah Acar
Öğr. Gör. Zülküf Ergün
Öğr. Gör. İbrahim Bingöl
Öğr. Gör. Ramazan Pertev

5

Kurmancî




# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Hilindir milindir, kur/law ji babê bilindtir.

2- Ez çûme serê banekî, min lêxist gopalekî, deng çû welatekî/newalekî.

3- Şerbikê pîrê, çû binê bîrê.

4- Tep tep dike, şeq şeq dike, genim bê sitar dike.

5- 10 dar û 2 ben, êxsîr tê da bûye reben.

6- Ji ser ve şkêr e, ji binve zêr e.

7- Sindoqa tijî têl, deng dide pêl bi pêl.

8- Pîremêrê pişt kelîştî, dermanê hemî tiştî.

9- Destekî çermîn e, bi demar e, bê xwîn e.

10- Tiştek e min heye, bi şevê bûke, bi rojê pepûk e.

11- Ji şekirê şirîntire, ji asinî girantir e.
- Tişteke ji risasî girantire u ji hengivînî şrîn tir.

12- Mêr e ji baranê dibizde, ji germê bi xwe de dimîze.

13- Çûme serê banekî, min berêxwe da aqarekî, 7 kilîlên di devê marekî.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin



# Agirî

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (282)

# Pêşmergeyên PDKÎ hêviya pêşeroja gel û welat













*Wênegir: Aso Salih*